*Bidestveanîna mafên netewî yên gelê kurd*
*di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de*

# Agirî

Duheftînameyek Siayasî-Giştî Ye, PDK Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî
www.agirimedia.org Hejmar (242) 23-11-2014 Buha (150) Tûmen



## *Peyama sersaxiya Deftera Siyasî a PDKÎ bi hinceta koça dawî ya Dr. Kemal Foad*

***Bi boneya koça dawî ya Dr. Kemal Foad, xebatkarê kevnar ê rêya rizgariya Kurdistanê û endamê mekteba siyasî a Yekîtiya Nîştimanî a Kurdistanê, em sersaxiyê dibêjin Mekteba Siyasî a Yekîtiya Nîştimanî û malbata wî ya rêzdar, û bona jidestdana***

Dom R: 2

# Bêhêvîtî di gotûbêjên navikî de






**Di demekê de ku berpirsyarên Îranî ragehandine ku endamên 5+1 heyan niha tu îdeyeke nû li derheq wan gotûbêjan de nexistine berbas, lê nûçegihaniya Rûyterzê ji zimanê hinek çavkaniyan ve ragehand ku dîplomatên payebilind ên Amerîka û Îranê li Viyenê, hinek îdeyên nû hene, ku dixwazin van îdeyan bi dewletên xwe re bas bikin.**

Ji aliyekî din ve dîplomatan ragehandin ku aliyên gotûbêjkar gellek ji hevdu dûr in, lê behs û gengeşe her wisa berdewam in. Lê Rûyterzê ji zimanê dîplomatekî payebilind ê Rojavayî ve ragehandiye ku zehmet e heya roja diyarîkirî lihevkirinek çêbe.

Di heman demê de, Civata Pêwendiyên Derve ya Amerîkayê ragehandiye ku hekî lihevkirinek çêbe, dibe ew yek nehê jibîrkirin, ku lêger dikarin ji nişkêve, û bi bê agehdarî serdana binkeyên wan yên navikî bikin. Herwisa ragehandiye ku rejîma Îranê li pey çeka navikî de ye.

Di beşeke din ya rapora civata navbirî de hatiye ku Lîbî û Afrîqaya Başûr qebûl kirin ku çavdêrî bi ser çalakiyên wan yên navikî de hebe, û dev ji pilana çêkirina çekên navikî berdan, lê rejîma Îranê wekî Îraqê ye, û dibe ku li jêr çavdêriyê de be.

***"Serokatiya Herêma Kurdistanê di hemberî êrîşan de, wê beşên din yên Kurdistanê biparêze".***



*Birêz Çinar Se'd Ebdulla:*

3

***"Bûyera herî tal ya temenê min jidestdayîna heval û mamostayê min şehîd Muhendis Xeyatî bû".***



*Birêz Omer Xulam'elî:*

8

***Komara Îslamiya Îran û gefên medyayî bo ser Tirkiyê***



6

***Debax nûnerê Herêma Kurdistanê, yan nûnerê Spaha Quds a Pasdaran?***



5

***Girêhişka danûstandinên navikî di kuderê de ye***




7

## Sergotar

# Komarîxwaz û gotûbêjên navikî

Şehab Xalidî

Piştî serkevtina komarîxwazan ev pirsa di mêjiyê gellek kesan de çê bûye, ku gelo ji niha şûnda wê çi bê serê wan gotûbêjên navikî yên bi Îranê re.

Bê guman Komarîxwaz li dijî van gotûbêjan in, û vê siyaseta Obama derheq Îranê bi tundî rexne dikin. Lewra ewê hewl bidin ku astengiyan li ser riya van gotûbêjan çê bikin. Jiber ku hekî wan gotûbêjên navikî encameke erênî hebin, eva hem Obama wê hewlê bide bo rakirina dorpêçên aborî yên ku bi ser Îranê de sepandine, û hem jî wê bikare hewl bide bo razîkirina xelkê Amerîkayê ji dewleta xwe, ku wî di pirseke herî giring de serkevtin bi dest xistiye, û renge hewl bide di warê siyaseta derekî de jî pêdeçûnekê bi ser siyasetên xwe de bike, lê ji bîra me neçe ku dîsan jî komarîxwaz li ser riya Obama astengeke sereke ne, û bi hêsanî pêşniyara rakirina dorpêçên aborî qebûl nakin.

Lê hekî ew gotûbêjên navikî bê encam bimînin, wê demê Komarîxwaz wê zêdetir ji berê hewlê bidin bo sepandina dorpêçên aborî li dijî Îranê, û hem jî wê hêceteke baştir bikeve destên wan de, ji bo piropagendeyên hilbijartina serkomariyê ku kêmtir ji du salan maye.

Lê ya ku eşkere ye, eva ye ku komarîxwaz wê bi hemû hewla xwe pêşiya sivikkirina dorpêçên aborî ji aliyê Obama ve, wê bigrin. Ew yek bê guman ne bi dilê Îranê ye, jiber ku hemû hewla Îranê eva ye ku li jêr barê van dorpêçên aborî de derkeve. Lewra ew siyaset bêbandor nabe li ser gotûbêjên navikî.
Em hêvî dikin ku komarîxwaz nehêlin ji vî qasî zêdetir rejîma Îranê wextkujiyê bike, û biryareke cesûrane û micid li ser rejîma Îranê bidin. Ji ber ku hewce ye ku Amerîka û civata navdewletî bi giştî, bi hawara xelkê Îranê de herin, û nehêlin ku rejîma Îranê ji vî qasî zêdetir, pirsa mafê mirovan di bin ‘ebayê gotûbêjên navikî de veşere.

# Yad û bîranîna Muhendis Xeyatî bilind hate ragirtin




**Roja 17’ê Novamberê (26’ê Xezelwer), bi hinceta yekemîn salvegera koça dawî ya Muhendis Riza Xeyatî damezrênerê RDKÎ, û herweha bona peyman nûkirin û rêzgirtin ji xebat û tekoşîna wî kadrê mandî nenas ê PDKÎ, parek ji heval û hevçeperên Mohendis Xeyatî li parên cuda cuda ên Komîsyona Ragehandina PDKÎ, serdana mezarê vî şehîdê rêya rizgariya Kurdistanê kirin.**

Mohendis Riza Xeyatî kadrê dêrîn ê PDKÎ, salek berî niha û di roja 25’ê Xezelwera sala 1392’an de, rastî bûyera hatin û çûyînê hat, û mixabin canê xwe ji dest da, û tevlî karwanê şehîdên rêya rizgariya Kurd û Kurdistanê bû.

Muhendis Riza Xeyatî sala 1933 (1312)’an li bajarê Xoyê hatiye dinê. Sala 1951 (1330)’an bi awayekî fermî di Artêşa rejîma Paşatiyê de tê damezirandin, û di sala 1980’î (1359’an) de, bi sedema dostatî û têkiliyên tevî rêberê navdarê Kurd Dr. Ebdulrehman Qasimlo, tevlî refên pêşmergên PDKÎ dibe. Yek ji avakerên RDKÎ bû, û di heyama 33 sal xizmeta xwe di RDKÎ de, bi sedan kadr û pêşmergên PDKÎ bona şarezayî di karûbarên fenî û moxabiratî de, perwerde kirin.

Ruha Muhendis Riza Xeyatî şa be, û rê û rêbaza ku niviya temenê xwe têde derbas kir, pir ji rêving be.

# Partên siyasî ên kurdistanî, bo piştgiriya Kurdistana Sûriyê kom bûn



**Kurdistanmedia: Nûnerên partên siyasî ên her çar parên kurdistanê di kombûnekê de, piştevaniya xwe bo kurdistana Sûriyê ragehandin.**

Roja Şemî 15’ê November a 2014’an nûnerên her çar parên Kurdistanê li Hewlêrê kom bûn, û di vê kombûnê de kekê Mihemed Salih Qadirî endamê Komîteya Nawendî ya PDKÎ bi nûnerayetiya PDKÎ beşdar bû, û di pêwendî tevî rewşa niha bi xasmanî kurdistana Sûriyê behs û gengeşe kirin.

Di dawiyê de Part û aliyên siyasî ên beşdarî kombûnê daxuyaniyeke hevbeş belav kirin, û di daxuyaniyê de xebat û berxwedana pêşmerge û şervanan li başûra Kurdistanê bilind nirxandin, û şerê hevpeymanan li dijî DAÎŞ’ê bi giring dane zanîn.

## Doma R: 1



xebatkar û zana, em xwe bi şirîkê xemêm we dizanîn.

Xwedê jê razî Dr.Kemal xincî xebata siyasî, xebatkarekî naskirî di warê edeb û rojnamevaniya gelê Kurd de bû, û di vê derheqê de xizmetek zaf bi gelê xwe kiribû, û hevdem ew rêzdar yek ji dostên herî bi emeg ê PDKÎ bû, û di hemû korr û kombûnekê de zimanê rastî û xêrê yê vê partiyê bû.

**Ruha wî şa be**

Pirsa Kurd û pêwendiyên bi Rojava re

# *Di gotûbêja digel xatû Çinar Se’d Ebdullah endama Civata Serkirdayetiya Partiya Demokrat a Kurdistanê*

**H: Kurdistan**

## “Hekî beşeke Kurdistanê bikeve ber gefê, serkirdayetiya siyasî ya Kurdistanê di herêmê de, wê tewahiya hewlên dîplomasî û serbazî ên xwe bixe ger ji bo parastina wê beşa Kurdistanê”.

Çinar Se’d Ebdullah: “Bêguman serweta neftî ya Kurdistanê bo neteweya Kurd bi giştî û herêma Kurdistanê bi taybetî hem bûye sedema gefxwarinan, û hem jî bi hêziya wê. Lê ya ku dikare zêdetir wan serwet û samanan jêre bike xêr û bêr û hêza piştevanî, çawaniya birêvebirina van samanan e”.

Xatû Çinar Se’d Ebdullah hilgirê bawernameya dukturaya civaknasiyê ye, û ji sala 2001-2004’an mamostaya zankoyê bûye, û di sala 2005’an de endama parlemênta Kurdistanê bûye.

Di sala 2006-2009’an Wezîra Karûbarên Şehîdan û Enfalkiriyan bûye di kabîneya pêncemîn ya Hikûmeta Herêma Kurdistanê de. Mamostaya wanebêjiyê ye di kolêja Adab beşa civaknasiya êvaran û seroka Enstîtûya Kurdî ye bo Vîktomolojiyê, û berengarbûna jînosaydê. Niha ew endama serkirdayetiya PDK’ê û berpirsa karûbarên pîşeyî di desteyên cemawerî û pêşeyî yên PDK a başûra Kurdistanê de ye. Xatû Çinar Se’d Ebdullah xeynî zimanê Kurdî şarezayî di zimanê Frasî û Erebî de heye, û bi zimanê Îngilîzî jî diaxive.

**1- Gellek caran ku bas ji têkiliyên baş ên niha ên Herêma Kurdistanê di gel welatên Rojava tê kirin, bîreweriya tall ya niskoya şoreşan û herwisa demkî bûna piştgiriyên wan têne bîra me. Bi baldan bi hilkişiyan û daketina berdewam ya van pêwendiyan ku gellek caran ji bo me Kurdan karesatbar bûye, we jêve ye ku rewş hertim li gorî berejewendiya Kurdan bûye? Yan piştî derbazbûna vê qonaxê û verevîna metirsiya DAÎŞ’ê Rojava wê cardin pişta xwe bide daxwaziyên Kurdan?**

**Bersiv:** Pirsa tevgera civakî pirseke hertimî ye, û jiyana mirovatiyê jî hertim di nav guherînkariyan de ye, bi vî awayî jiyana siyasî jî ku beşek e ji menzûmeya giştî ya jiyana civakî, her tim guhertin bi ser de tê.
Di van guherînkariyên berdewam de, ya ku gellek giring e ku serkirde û siyasetvanên Kurd berçav bigrin:
1-Mifahwergirtin ji ezmûnên berê, û derfet nedana bi ducarîbûna şaşiyan, çi di reftara hêzên siyasî bi hevre, li ser asta navxwe ya Kurdistanê, û çi jî di reftara bi derdorê û welatên herêmî û cîhanê re.
2- Bi awayekî siyaset bihê kirin ku bi awayekî berdewam, yan aliyê kêm bo heyameke dûr û dirêj Kurdistan bibe beşek ji berjewendiya welatêbn Rojava û dost.
3-Bi awayekî siyaset bihê kirin ku di birêvebirina kirîzan de zêdetir rastbîn bin.
Bi berçavgirtina van çend xalan, di vê rewşa hestiyar de ku herêm têketiye, Kurdistan ji qonaxa bi qurbanîbûnê rizgar dibe.

**Pirs: Obama di şeş salên borî de bi vê dihate naskirin ku di siyaseta derve de gellek parêzkar e, û xwe ji şer û kêşeyan dûr dixe, lê li ser Kurdan biryara şereke nû li derveyî sînorên Amerîkayê derkir. Alman aliyê kêm piştî şerê duyemîn ê cîhanî bi awayekî fermî çek ji tu aliyekî re neşandiye ku dewleteke serbixwe nebe, lê ji bo Kurdan ew yek kir, sedema van guhertinên dîrokî çi ne?**

**Bersiv:** Sedem du alî ne. Beşek pêwendiya rasterast bi rikeberî û berjewendiya wan welatan ve heye di herêmê de, û metirsiya gefxwarinên DAÎŞ’ê bo ser ewlehiya wan welatan. Sedema duyemîn pêwendiya wê bi vê pêgeh û baweriyê ve heye ku Herêma Kurdistanê di dema deshilatdariya xwe de, kariye ku li ser asta navdewletî çê bike, Herêma Kurdistanê kariye ku heya astekê serkevtî di demokrasiyet û hilbijartin û çendhizbî û destawdestkirina deshilatê di herêmê de nîşanî cîhanî bide, herwisa Herêma Kurdistanê di vê yekê de jî serkevtî bû ku karî berbirûyê teror û terorîstan bibe, û ji vî agirê ku çend sale dewleta Îraqê di nav de dişewite, xwe biparêze, û herêmeke aram û avedan ava bike.
Her ew yek jî bûye sedem ku bi dehan û sedan kompanyayên cîhanî rû li vê herêmê bikin û bi lez ev herêma geşe bike. Dîroka pêkvejiyana tewahiya pêkhateyên olî û neteweyî di Kurdistanê de, ezmûneke serkevtî û dewlemend e ku bala hemû cîhanê bo aliyê xwe rakêşaye.

Her vê yekê jî wisa kiriye ku tewahiya ayîn û ayînzayên din, ku di herêmên din de ketine ber gefê, rû li vê herêma aram bikin. Îro rojê di Herêma Kurdistanê de bi milyonan aware jiyanê dikin, eva jî serbarê zexta zêde ya Bexdayê li ser Herêma Kurdistanê û birîna bijîva jiyana xelkê ye.
Hebûna pêşmergeyên Kurdistanê û berbirûbûna gefên DAÎŞ’ê wekî xaleke din ya hêza herêmê tê hesiban-








din, ew hemû bi hev re bûne sedem ku di asta navdewletî de piştevaniya gelê Kurdistanê bê kirin.

**Pirs: Çima serbarê germ û gurriya pêwendiyên Kurd û Rojava hest tê kirin ku li hemberî hêzên herêmî ên wekî Îranê û heta Hikûmeta Nawendî ya Îraqê de, giraniya Kurdan daketiye. Gelo bi raya we pêwendiyên Kurd û Rojava dikare rojekê bigihîje astekê ku Kurd di bazineya daxistî ya hêzên herêmî ên xwe de derbaz be û bandora wan li ser Kurda bê lawazkirin?**

**Bersiv:** Neteweya Kurd digel gelên din yên herêmê bi Tirk û Fars û Ereb ve, dîrokeke dûr û dirêj ya pêkvejiyan û cîranetiyê hene. Herçend ku di piraniya rawestgehên dîrokî de neteweya Kurd her tim ji aliyê wan neteweyan ve zulm li wan hatiye kirin, û hatiye çewsandin, û hatiye piştguhxistin, lê bi vê siyaseta wan ya leşkerî û siyaseta çewsandinê qet nekarîne ku wan ji nav bibin, yan wan paşgez bikin ji serhildan û şoreşên wan di pêxema azadî û serbixweyiya gelê Kudristanê.

Bi boçûna min ew du welat, şaşiyên gellek mezin dikin, hekî bixwazin ku bi heman eqliyeta berê bi Kurdan re reftarê bikin. Giranî û ezmûna serkevtî ya demokrasiyê di Herêma Kurdistanê de û pêwendiya berfireh ya vê herêmê bi gelên Rojava re, û berjewendiya welatan li serwet û samana herêmê de, û hebûna cîraneke cihgir û aram û dewlemend, ew qas berjewendiya wê bo wan welatan heye ku cihê tirsê nine bo wan, belkû Bexda û dewleta Îranê dibe vê yekê bizanin ku çi di mana Herêma Kurdistanê de di gel Îraqê, û çi jî di dema serbixweyiyê de, gelê Kurdistanê her wekî cîranê wan welatan dimîne, û di berjewendiya her du welatan de ye, ku pêwendiyên bazerganî, û ferhengî û dîplomasiyeke tund û bi hêz bi cîranên xwe re hebin, ne berevajiyê vê yekê. Jiber ku ew siyaseta tendirust berjewendiya wê bo tewahiya gelên herêmê heye.

Hêvîxwaz im ku ew gihîştibine vê encamê ku xeynî pêwendiya bi gelê Kurdistanê re, û qebûlkirina wek xwe, tu vebijêrkeke din di ber destên wan de tune be ku berjewendiya wê bo her du aliyan tunebe.

**Pirs: Faktera petrola Kurdistanê heya çi astekê dikare alîkar yan geffxwarineke be bo ser statûya Kurd bi giştî û Herêma Kurdistana Başûr bi taybetî û pêwendiyên navneteweyî ?**

**Bersiv:** Gellek caran ez vê pirsê ji xwe dikim, ku hekî hilkevta xaka Kurdistanê di herêmeke hejar di warê serwet û samana ser erdê û jêr erdê ba, neteweya Kurd wê ew hemû neyar hebana? Gelo niha ew neteweya, xwediyê dewleta xwe ya serbixwe nebû? Gelo her bi sedema dewlemendiya xaka Kurdistanê nine, ku çavên hemiyan li ser vê xakê ye, û rikeberî li ser heye? Bêguman serweta neftî ya Kurdistanê bo neteweya Kurd bi giştî û herêma Kurdistanê bi taybetî hem bûye sedema gefxwarinan, û hem jî bi hêziya wê. Lê ya ku dikare zêdetir wan serwet û samanan jêre bike xêr û bêr û hêza piştevanî, çawaniya birêvebirina van samanan e.

Şêweya bikaranîna van samanan gellek hestiyar e. Bi sala ye ku serokatiya herêmê, û Hikûmeta Herêma Kurdistanê di vî wraî de gellek pêngavên dîrokî hilgirtine, tevî gefên gellek mezin û astengiyan ku heya niha jî berdewam in, lê herêmê karî ku di pêşvebirina vê kertê de li ser asta navxwe kêşeya sotemenî û elektirîkê bo navxwe heya asteke zêde çareser bike, û di vî warî de jî serbixwe bin, û li ser asta derekî jî mezintirîn kompaniyayên cîhanî bo sermayedanîna li ser vê kertê rabikêşe Kurdistanbê, û di encam de berjewendiya welatên mezinhêz bê herêmê. Tevî dijwariyeke zaf, lê rastiyek heye ku ew jî eva ye ku Herêma Kurdistanê di vî warî de, ber bi pêşve pêngavan hildigre, û eva jî di berjewendiya gelê Kurdistanê ye li her çar perçeyan de.

**Pirs: Di têkiliyên niha yên Herêma Kurdistanê bi cîhana derve re, berjewendiyên Kurd bi giştî çi rengdaneveyek hene? Bo mînak gelo kar li ser vê hatiye kirin ku anîna ber basê ya pirsa Kurd di parçeyên din de jî, bibe beşek ji dîplomasiya herêmê?**

**Bersiv:** Rast e ku Kurdistan di warê serbixweyiya birêvebirinê de, tenê ezmûn e ji bo tewahiya Kurdan di herêmê de û çavên hemû kesekî li ser e.
Lê eva ne bi vê wateyê ye ku kêşeya Kurd di herêmê de bi dawî hatiye. Jiber ku pirsa Kurd di beşeke Kurdistanê cuda nine ji beşên din ên Kurdistanê. Her eva jî bûye sedem ku hekî beşeke Kurdistanê bikeve ber gefê, serkirdayetiya siyasî ya Kurdistanê di herêmê de, tewahiya hewlên dîplomasî û serbazî ên xwe bixe ger ji bo parastina wê. Mînaka bi hawar de hatina Herêma Kurdistanê li ser Kobanê, û şandina hêza piştevanî û çekan ji bo Kobanê, yan beşdarîkirina pêşmerge û şervanên beşên din ên Kurdistanê li eniyên Mexmûr û Kerkûk û Şingalê. Eva serbarê wan hewlên eşkere û veşartî ne ku her tim herêmê dane bo çareserkirina pirsa Kurd di Bakûr û Rojava û Rojhilat.



# Debax nûnerê Herêma Kurdistanê, yan nûnerê Spaha Quds a Pasdaran?



**Nazim Debax: "Renge hinek ji Kurdan, têgihîştina wan ji axavtinên min wisa be ku bêjin eva Debax bûye nûnerê Qasim Sulêymanî, lê (axavtinên wan) bo min, ne giring in".**

**Kurdistan**

Heyamek e ku êrîşên ne rewa bo ser tevgera rewa ya xelkê Kurd di Kurdistana Îranê, û paknîşandana rûçikê dijî mirovî yê deshilata zal bi ser Îranê de, bûye karê hinek ji ragehandinan û hinek ji siyasiyên Kurdistana Îranê. Di vê navberê de renge navê Nazim Debax nûnerê niha yê Hikûmeta Herêma Kurdistanê û nûnerê pêşîn ê Yekîtiya Nîtimanî ya Kurdistanê di Tehranê de, ji yên din zêdetir li ser zar û zimanan bûye.

Debax û kesên siyasî yên wekî wî, serbarê beşdariya rasterast û ji mêjdem di nav refên xebata rizgarîxwaziya Kurdistana Îraqê de, û bawеriya tewaw bi rewabûna xebata cihê şanaziyê ya xelkê Kurdistana Îranê li dijî rejîma dijî mirovî ya zal bi ser Îranê de, ku beşek ji xebta Kurdan ya di bi tewahiya beşên Kurdistanê de, li dijî stema neteweyî û dagîrkariyê ye, bi awayekî ku cihê heyirînê ye, hewl dide ku rastiyan berevajî nîşan bide, bi awayekî ku li gorî berejewendiya rejîma dijî Kurd a Îranê, û bi zirara tevger û xelkê mafxwaz ê Kurdistana Îranê be.

Eva ku berjewendiya wî ya şexsî, û yan jî cinahî, ya jî berjewendiya hikûmetekê ku bi berçav, ew wekî nûnerê xwe di Tehranê de destnîşan kiriye, di çi de ye, ku ew nûnerê wan ew qas xwe li ber dergehê rejîma Îranê xwe şirîn dike, û van axavtinên bê bingeh û ne dostane, li dijî tevgera Kurdistana Îranê dike, eva mijarek e ku mirov nagihîne çi cihekî, û hindî ku em dizanin, ew nikare bi van şêwe zimanlûsiyan ji bo rayedarên rejîma dijî Kurd a Tehranê, bandorê li ser guherîna dîtingeha dagîrkarane ya Komara Îslamiya Îranê, li derheq Herêma Kurdistanê danê, û di vir de ye ku armanca rastîn ya navbirî ji gotinên bi vî rengî şik û gumanan çê dike.

Nazim Debax di gotûbêja xwe ya herî nû de, digel weşana "Hemşehriyê Cewan", dîsan jî bas ji hinek mijaran di vê derheqê de kiriye, ku di vê mijarê de, emê hinek ji wan gotinên wî bi kurtî şirove bikin:

Naweroka giştî û balkêş ya vê gotûbêja nîv demjimêrî, medahiyên navbirî yên ecêb û cihê matmayînê, li ser pasdar Qasim Sulêymanî fermandarê saziya terorîstî ya Qudsa Spaha Pasdaran e, ku berpirsayetiya wî di Komara Îslamiya Îranê de, û destêwerdana di nav karûbarên navxweyî yên welatên din ji riya perwerde, û amadekirin û şandina girûpên terorîstî bo derveyî Îranê, û navê wî wekî terorîsteke bed naw, di sertaserî cîhanê de, nîşana cînayet û mirovkujiyan e.

Debax di axavtina xwe de ji Qasim Sulêymanî, kesayetiyekî mirovdost, qehremankî rastbêj, sade û xakî, xelkî, û dilsojê xelkê Kurd bi nav dike. Debax di heman destpêka axavtina xwe de, eyara nîştimanperweriya xwe eşkere dike, ku rû li hevpeyvînkarê Îranî dibêje: "Me Kurdistan heye, we jî Sulêymanî".

Em nizanin ku vê gotinê, bi wateya kûrahiya baweriya wî bi bi pasdar Qasim Sulêymanî bizanin, yan jî ew gotin nîşana ew qasê nefret û hêrsa wî ji Kurdistanê ye. Lê encama her du têgihîştinan jî tal e.

Di pareke din ya axavtinên xwe de Debax dibêje: "Me her demekê ku di vir de kêşe û arîşeyek hebe, û em bixwazin bi wezîr yan serkomar re hevdîtinê pêk bînin, tenê ji riya wî ve ye ku em dikarin bi awayekî lezgîn bigihîjin armanca xwe, û hekî ew bizane ku mijar gellek hewce ye, bi lez ji bo hevdîtinê, amadekariyên hewce dike".

Ew axavtina zêdetir ji vê ku nîşana jêhatîbûna pasdar Sulêymanî be, nîşana lawaziya Debax û nûneratiya Herêma Kurdistanê, di welatê Îranê de ye, ku naskirina berjewendiyên xwe, hêlane hêviya wî fermandarê Spaha Quds, û li gorî heman gotinê, eva Qasim Sulêymanî ye ku diyarî dike ku Debax û alîkarên wî, çi demekê û li derheqê kîjan mijaran, herin xizmeta kîjan berpirsyarên Îranî.

Debax di doma axavtina xwe de digel sivikatîkirina bi partiyên xebatgêryên Kurdistana Îranê, û navbirin ji wan wekî "teşkîlat" dibêje: "Me digel Îranê û tewahiya Kurdan li hev kiriye, ku ne ew sînorên me ji bo êrîşa li dijî Îranê bi kar bînin, û ne jî Îran xaka me ji bo êrîşa bejahiyê li dijî wan bi kar bîne.

Amadeyiya Qasim Sulêymanî wekî nûnerê Îranê bû sedema vê ku ew lihevkirin ser bigre. Hekî sedaqetek tunebe, bi avêtina narincokekê bo nav deftera van du teşkîlatan de (Partiya Demokrat û Komele), wê hemû lihevkirinê tevlihev bikin, û eva sedem dilovaniya Îraniyan e, ku tiştek wisa rû nade".

Hekî ev gotina Debax rast be ku ewlehiya Herêma Kurdistanê tenê bi pifkirinek yan bi îşareyeke Suleymanî tevlihev bibe, û Hikûmeta Herêmê û nawendên emniyetî, siyasî û leşkerî yên Kurdistanê, tu deshilatek tunebin, encama rewşeke bi vî awayî gellek metirsîdar e.

Jiber zehmet e ku hekî rejîma Îranê bi sanahî bikare cihekî tevlîhev bike, rehet rûnê, û hewl nede ke wî cihî tevlihev neke. Helbet hekî ew cih, beşek ji hewşa xelweta ya Spaha Pasdar, yan jî beylika rejîma Îranê be, wê demê helwest cuda ye.

Ji aliyekî din ve, renge Debax bîra xwe biribe, lê her ev partiyane, yan bi gotina wî van "teşkîlatan", derbazbûyiyek dûr û dirêj ya xebateke bi xwîn, û tamkirina şikestê bi kesên giringtir ji bota fikrî ya Debax, di karnameya xwe de hene, û hekî niha xebata çekdarî ya xwe ragitine, tenê bi sedema parastina deskevtên neteweya Kurd, û ji bo cihgirkirina aramiyê di Herêma Kurdistanê de ye, hikûmeta deshilatdar di vê herêma aram de, kesayetiya hiqûqî ya nûnerekî siyasî daye wî.

Hekî Qasim Sulêymanî (bi gotina wî), bi avêtina narincokekê dikare her tiştî tevlihev bike, wê demê tevgera Kurdistana Îranê jî, hekî nerîneke wisa li ser Debax û hevhizrên wî bo siyasetê hebe, dikare bi qurbanîkirina deskevt û berjewendiyên neteweya kurd di Kurdistana Îraqê de, Kurdistana Îranê ji hebûna kesên wekî Qasim Sulêymanî paqij bike.

Lewra berevajiyê hizra wî, ewlehiya nihan ya Herêma Kurdistanê, ne "bi sedema dilovaniya siyaseta Îraniyan", belkû bi sedema xebata xwînîn ya hizb, û xelkê tewahiya beşên Kurdistanê ye, ku di vê navberê de partiyên Kurdistana Îranê bi qebûlkirina berpirsayetiyê, roleke berçav û dîrokî hebûne, û retkirina rastiyên bi vî awayî ji aliyî her girûpekê ve be, wekî spasnekirin û pê nezanîn, di hemberî wan hemû alîkariyan de tê hesibandin.

Axavtinên bi vî rengî yên kesên wekî Debax, mirov dixe nav şik û gumanan de, ku gelo di rastî de ew nûnerê Herêma Kurdistanê di Îranê de ye, yan berdevk û nûnerê Spaha Quds di nûneratiya Herêma Kudristanê de ye? Axavtinên wî, bê hurmetiyeke eşkere bi heft dehikan xebata rewa ya gelê Kurd di Kurdistana Îranê de ye, ku hesta neteweyî ya xelkê Kurd di vê para Kurdistanê de birîndar dike, herçend ku ew di vê hevpeyvînê de bi eşkere dibêje ku: "Renge hinek ji Kurdan, têgihîştina wan ji axavtinên min wisa be ku bêjin eva Debax bûye nûnerê Qasim Sulêymanî, lê (axavtinên wan) bo min, ne giring in".

Em hêvîdar in ku Hikûmeta Herêma Kurdistanê, hekî gotinên nûnerê xwe di Îranê de helwest û siyaseta fermî ya xwe nizane, bila bersiveke kêrhatiyê wan gotinê bê çine yên Debax, bide wî, û herwisa Debax jî bi pêdeçûnekê bi ser dîroka cihê şanaziyê ya neteweya Kurd û heya partiya xwe jî, qehremanên bê hejmar ên din jî, bi bîr bîne, ku kesên wekî Qasim Sulêymanî gellek caran di hemberî îradeya hesinîn ya wan de bi çok de hatiye, ew qehremanên ku di çeperên destanrêsî û şerefê de canê xwe dan, da ku niha hilgirên peyama Kurdistanê, qet daristanên Kurdistanê wekî çolistaneke rût nehesibînin, û herwisa şanaziyê jî bi vê nekin ku "Kurdistan bibe cihê geriyana şuxalên bîhanî".



# Komara Îslamiya Îran û gefên medyayî bo ser Tirkiyê



**Dara Natiq**

Bi dirêjahiya dîrokê dijminên Kurd û bi taybetî welatên dagîrker ên Kurdistanê û yek ji wan dewleta Tirkiyê hewla serkutkirina Kurdan dane, û ji tu cure helwkê ji bo helandina şûnasa Kurdan xemsarî nekirine.

Bi sedema berdewamiya Kurdan li ser xebatê hewla şovînî ya neyarên Kurd, bûye bilqa ser avê û niha jî pirsa Kurd, bi taybetî başûra Kurdistanê wekî mînaka demokrasiyeke serkevtî di Rojhilata Navîn de bûye cihê giringîdana welatên Rojava û faktereke giring e li ser asta herêmê.

Ew hemû bi taybetî ektîvbûna tevgera azadîxwaziya Kurd di bakûra Kurdistanê roj bi roj paşvekêşê bi siyaseta serkutkerane ya Tirkiyê li hemberî doza Kurdan de kiriye, û piştî hatina AKP'ê bo ser deshilatê, siyaseta wan li hemberî Kurdan de, guherîneke bingehîn bi ser de hatiye, bi awayekî ku niha hewlê ji bo çareseriya pirsa Kurd ji riya aştîxwazane ve tê dayîn, û pêwendiyên wan bi Herêma Kurdistanê re ketiye nav qonaxeke giring û dîrokî de. Lewra Tirkiye wekî faktereke giring di herêmê de danûstandinê bi Herêma Kurdistanê re dike.

Serbarê vê jî çûna pêşmerge bo şerê li dijî DAÎŞ'ê bo nav xaka bakûra Kurdistanê de, bo alîkariya birayên xwe ên Kurd li Kobanê, û çareserkirina birîndarên şervanên YPG'ê di nexweşxaneyên Tirkiyê de, û herwisa alîkariya hemû aliyane digel awareyên Rojava rastiya van pirsan bi eşkereyî derdixe.

Lewra siyaseta Tirkiyê ya niha li hemberî pirsa Kurd de, û giringîdana wî welatî bi herêma Kurdistanê bûye sedema vê ku Komara Îslamiya Îranê wekî yek ji welatên dagîrkar ên Kurdistanê hestiyariyeke zêdetir jêre çê bibe, û dijkiryarên armancdar ji xwe nîşan bide.

Bi taybetî di dema derbazbûyî de ragehandinên ser bi rejîma Îranê, û hevalbendên wê li jêr siyaseteke armancdar de, xwe wekî dilsojê Kurd nîşan didin û berdewam êrîşî ser Tirkiyê dikin, û wekî alîkarê girûpa terorîstiya DAÎŞ û dijminê Kurd li Rojava têne hesibandin, û herwisa tê tawanbarkirin ku wan şerê di navbera DAÎŞ û Kurdan de çê kiriye.

Di meşên wan dawiyane yên rojhilata Kurdistanê de, ji bo piştevaniya ji berxwadana Kobanê, Komara Îslamiya Îranê hewl da ku ji riya dest û pêwendiyên xwe ve rasteriya diruşm û armancên meşên wan li dijî dewleta Tirkiyê biguhere, lê xelkê hişyar ên Kurdistanê cardin nehêlan ku rejîm armancên xwe yên bi merem bipêke û bi gotina diruşmên "Tehran hevalbendê DAÎŞ e, û ji Îlam heya Kobanê Kurdistan e", pîlanên rejîmê pûç kirin.

Ew hewlên rejîmê di demekê de ne ku zêdetir ji sê dehikan e ku bixwe berdewam di hewla asîmîlekirina Kurdên Rojhilata Kurdistanê de bûye, û bi dehan kiryarên terorîstî di asta herêm û welatên Rojava de bi rêve birine, û bûye tirsa herî mezin li ser aştiya herêm û cîhanê.

Komara Îslamiya Îranê bi sedema destêwerdan û têkdana aramiya herêman, û palpiştiya girûpên wekî Hizbullaha Lubnan, Hemas û ...hwd, bûye cihê nîgeraniya hemû pêkhateyên herêmê.

Rejîma terorîstperwer ya Komara Îslamiya Îranê dixwaze ku bi vê siyasetê pîlanên xwe bi armanca jinavbirina tevgera rizgarîxwazane ya Kurd li Rojavaya Kurdistanê û têkdana rewşa aborî û tenahiya Herêma Kurdistanê bi awayekî pilandarêtî bi rêve bibe.

Di demekê de ku beşeke berçav ji xaka Îraqê bi sedema siyaseta şikestxwarî ya Malikî bû, ku ji aliyê DAÎŞ'ê ve dest bi ser de hate girtin, û gefên vê girûpê rû li Bexdayê û dewleta Malikî bû, û hevdem pirsa serbixweyiya Kurdistanê bibû rojeva medyayan, û Herêma Kurdistanê xwe ji bo birêvebirina kernevala serbixweyiya Kurdistanê amade dikir, berpirsyarên rejîma Îranê berdewam li dijî serbixweyiya Kurdistanê diaxivîn, û ji riya fermanderê mezin yê terorîstan Qasim Silêmanî ve bera êrîşa DAÎŞ'ê bo ser Kurdistanê guherîn, da ku ji vê riyê ve, bikarin ku hem zextên navxweyî û derekî yên li ser deshilata Malikî kêm bikin, û hem jî bi têkdana rewşa ewlehiya Kurdistanê pirsa serbixweyiya Kurdistanê bike bilqa ser avê, û bi vê hêcetê hêzên xwe li beşek ji xaka Kurdistan û Îraqê de cihgir bike, da ku her demekê bi hewce zanî, bikare pêşiya geşekirina Kurdistanê bigre.

Ji aliyekî din ve Îran bi guherîna şerê DAÎŞ'ê ber bi Herêma Kurdistanê, û bi taybetî Kobanê, xwast ku zexta li ser Beşar Esed kêm bike, û biparêze.

Di heman demê de bi êrşîa medyayî bo ser Tirkiyê şer û dijminatiyê di navbera gelê Kurd û hikûmeta Tirkiyê de çê bike, û piroseya çareseriya aştiyane ya pirsa Kurd di vî welatî de ji riya xwe derxîne.



# Nerîna Lîderan



Adil Ebdulmehdî:

**“Lihevkirina nû ya Bexd-Hewlêrê çareseriya dawiyê bo kêşeyan nine”.**



Martî Dêmpsî:

**“Hêza Hevalbendan hewcehiyên pêşmerge dabîn dike”.**



Obama:

**“Beşar Esed rewayiya xwe ji dest daye”.**



Oznûr Çelîk:

**“Bi sedema komkujiya Dersîmê û hemû wan zulmên ku li Kurdan hatiye kirin, ez daxwaza lêborînê dikim”.**

# *Girêhişka danûstandinên navikî di kuderê de ye*






**Arif Vêlzî**

Keysa navikî ya Îranê, yan jî bi gotineke din danûstandinên navikî ên di navbera Komara Îslamiya Îranê bi Rojavayiyan re, bi serperestiya Amerîkayê mijareke ku bi sala ye çendîn civînên curbicur li cihên curbicur ên cîhanê de jêre hatine kirin, lê di rastî de her hemû jî bê encam mane.

Girêhişka van danûstandinan ku bi berçav her heman mehandina Oranyomê ye li hemberî rakirina tewahiya tehrîmên Rojava li ser Îranê, heyamek e ku hatiye dîtin, lê vekirina vê girêya hişik û lihevkirina li ser wê, hêla jî bê encam maye, û renge qet jî negihîjin tu encamekê.

Piştî nêzîk bi dehikekê rûniştina li ser vê keysê dîsan roja yekşemiyê 9’ê Novamberê(18’ê Xezelwer) nehemîn gera civînên di navbera Rojava û Îranê, bi beşdariya Can Kirî Wezîrê Karûbarên Derve yê Amerîkayê, û Mihemed Cewad Zerîf Wezîrê Karûbarên Derve ê Îranê û Katrîn Eşton nûnera Yekîtiya Ewropayê li Mesqeta pêtexta Omanê de, bi rêve çû.

Piştî sê rojan û çendîn civînan, danûstandin bi dawî hatin, û karbidetsên serê ên her du aliyan ragehandin ku dîsan wekî caran pirsên giring yên wekî mehandina Oranyomê û hilgirtina tehrîman di cihê xwe de mane, û tu lihevkirinek li ser nehatiye kirin, wate vê carê jî ew girêhişk bi nevekirî, maye bo dawî derfetê, wate roja 24’ê Novemberê (3’ê Sermawezê).

Her wekî civînên derbazbûyî Komara Îslamiya Îranê selimand ku armanc jî lihevnekirin û dirêjkirina danûstandinên bi Rojava re, tenê kuştina demê û lîstina bi aliyê hember e. Jiber ku ji aliyekî ve jêsta xwazyarbûna lihevkirinan di danûstandinan de dide, û ji aliyekî din ve, pêdagiriyê li ser mehandina Oranyomê dike. Mînaka herî berçav ji bo vî karî jî eva ye ku di medyayan de hawara lihevkirinê dike, lê hevdem digel danûstandinan Elî Ekber Wilayetî serokê Nawenda Lêkolîna Stratejîk ya Civata Nizamê radigehîne ku: “Em bi mafê xwe dizanin û dev ji mafên xwe li derheq nawendên têhnê yên wekî Firdo, Netenz, Erak û hejmara santrîfiyojên xwe û rêjeya mehandina Oranyomê nahînin”.

Ji aliyekî din ve jî, hevdem digel birêveçûna danûstandinan, axavtinên tund û dûr ji rastiyan yên Ebas Îraqçî cihgirê Wezîrê Karûbarên Derve ê Îranê li derheq rakirina yekcarî ya gemaroyên Konseya Ewlekariyê, YE, serkomar û kongirêsa Amerîkayê û herwisa nameyên 200 nûnerên Meclîsa Şêvra Îslamiya Îranê, ku têde pênc pêş şert ji bo lihevkirina bi Rojava re diyarî kiriye, qala vê rastiyê dikin ku Komara Îslamiya Îranê zêdetir hewla kuştina demê û wergirtina poanên zêdetir dike, ne lihevkiirna li ser keysa etomî.

Ya ku cihê baldanê ye, eva ye ku di kelekela rûniştina Mesqetê de, û hevdem digel birêveçûna roja duyemîn ya danûstandinan, di sefereke xwe de ji bo Moskoyê ku roja 20’ê Xezelwerê encam da, serokê Saziya Wizeya Etomî ya Îranê Elî Ekber Salihî ragehand ku lihevkirinek li derheq avakirina du nawendên etomî li Bûşehrê de, digel Kompanyaya “Rûs Etom” a Rûsiyê wajo kiriye, û li gorî vê lihevkirinê çar reaktorên din li Îranê têne avakirin ku heya niha cihê avakirina wan, ne diyar e.

Herçend piştî rûniştina Mesqetê wate roja Sêşem 18’ê Novamberê ( 27’ê Xezelwerê), dawî gera danûstandinên di navbera her du aliyan de, di Viyena pêtextê Nemsayê de dest pê kir, û heya niha jî rewş û hewayê zal bi ser civînan de wekî diyar e, rewş û hewayekî wek caran sar û bê deskevt e, û mewdaya navbera her du aliyan hêla jî dûrûdirêj e, û asoya lihevkirina yekcarî heya 24’ê Novamnber (3’ê Sermawezê) her tarî ye.

Lewra bi berçavgirtina paşekêşenekirina Îranê û pêdagirbûna wê li ser mehandina Oranyomê û hilgirtina yekcarî ya tehrîman û gotinên cur bi cur ên têkderane ên karbidetsên rejîmê û herwisa wajokirina lihevkirina “Rûs Etom”ê piştî neh caran rûniştinên berdewam, hevdem digel destêwerdana di nav karûbarên navxwe yên welatên herêmê û piştevaniya hemû aliyane ji girûpên terorîstî bi sedema sepandina deshilat û hejmoniya xwe, ku heman siyaseta şandina derve ya şoreşa Îslamî ye, vê yekê nîşan dide ku komara Îslamî bi armanca lihevkirna li ser keysa etomî, beşdariyê di van danûstandinan de nake, belkû armancên veşartî yên din hene ku hewlê ji bo wan dide, lewra tê pêşbînîkirin ku di dawî derfeta diyarîkirî ji bo gihîştina bi lehevkirina dawî, wate 24’ê Novemberê de, tu encamek tunebe, û ew girêhişik her wekî xwe bimîne.

Lê bi vê pêkê jî tu rêçareyeke nû û baş di holê de namîne, da ku dîsan dem jêre bihê diyarîkirin, û bi neçarî vebijêrkên xirap û xiraptir têne holê, ku heman zêdekirina gemaroyan li ser Îranê, yan jî heya egera weşandina gorza leşkerî bo ser binkeyên navikî ên Îranê, bi piştevaniya civaka navdewletî dibe.

Birêz ‘Omer Xulam’elî

# “Bûyera herî tal ya temenê min jidestdayîna heval û mamostayê min şehîd Muhendis Xeyatî ye, jiber ku ew bûyera bi sedema kêmtirxemiyê ve rû da, û dikarî ku rû nede”.



H: Arif Vêlzî

Birêz ‘Omer Xulam’elî roja 29.12.1341’an di gundê Qaraweya mezin ya herêma Torcan ya bajarê Bokanê li ser lêva rûbarê Tetehû di nav malbateke cotkar û ajeldar de ji dayîk bûye.

‘Omer Xulam’elî di sala 1968 (1347)’an de diçe xwendingehê û heya serkevtina şoreşa gelên Îranê di sala 1979’an de dersê dixwîne.
Navbirî li derheq çawaniya nasîna PDKÎ weha ji rojnameya Agirî re axivî: “Bo yekemîn car wekî hemû xelkê gund û bajarên Kurdistanê, di dema şoreşa gelên Îranê de, em tevlî xelkê serhildêr bûn, û me diruşm didan, diyare ku bo hevtemenên me wê demê PDKÎ naskirî bû, jiber ku kêm û zêde xelkê Qarawe beşdarî xebata xelkê Kurdistana Îranê bûn, herwisa mabûn yên ku pêşmergatiya Komara Kurdistanbê kiribûn, herwisa mabûn yên ku di dema serhildana cotkarên Mehabadê de alîgiriya PDKÎ kiribûn, û di şoreşa sala 1967-1968 (1346-1347)’an de çalak bûn. Yên ku me bas kirin bûne sedema vê ku ne tenê ez, belkû gellek xortên herêma me tevlî şoreşê bibin.

Birêz ‘Omer Xulam’elî li derheq hatina xwe bo nav refên PDKÎ weha dibêje: “Bi destpêkirina xebata eşkere ya PDKÎ, me komek xortên gund bi hevre binkeyek ji bo Rêkxirawa Lawan ya PDKÎ di gundê xwe de vekir. Piştî şerê sê heyvî, me hewl da ku bibin pêşmerge, lê çek nedane me.

Bi destpêkirina şerê li Kurdistanê ji aliyê Komara Îslamiya Îranê ve, ku di buhar û havîna sala 1980 (1359)’an di Kamyaran û Sine û Seqizê de rû da, em bi awayekî fermî bûne pêşmerge û di dema şerê nav Seqizê de, em di peleke ser bi hêza şehîd Ezîz Yosifî di taxa Hemalawa ya Seqizê de bûn, û berdewam di bin agirê xompareyan de bûn, û piştî bi cih hêlana bajar em çûne Serşîwê.

Di havîna heman salê de ji aliyê komîteya şaristanê ve, şehîd Rehman şandin bo dewreya kadrê siyasî û ez jî bo dewreya Muxabiratê şandim dola Xidiravê, li ser riya Pîranşar-Serdeştê. Piştî vê dewreyê me karî ku baştirîn û hêsantirîn rê ji bo avakirina toreke berfireh ya muxabiratê dest pê bikin, ku li seraserî Kurdistanê dihate girtin, û di rastî de para herî zêde ya zehmeta wî karî li stûyê şehîd Muhendis Riza Xeyatî bû. Şehîd Muhendis xeyrî vê ku şanaziya avakirina Radyoya Dengê Kurdistana Îranê heye, şanaziya avakirina bêsîma PDKÎ jî heye, ku bi baweriya min, guhertineke bi bandor û heya şoreşeke pêwendiyan bû di nav PDKÎ de.

> *‘Omer Xulam’elî:*
> **“Şehîd Muhendis xeynî vê ku şanaziya avakirina Radyoya Dengê Kurdistana Îranê hebû, şanaziya avakirina bêsîma PDKÎ jî hebû, ku bi baweriya min, guhertineke bi bandor û heya şoreşeke pêwendiyan bû di nav PDKÎ de”.**

Birêz ‘Omer Xulam’elî rojên herî xweş ên pêşmergatiya xwe bi vî awayî tîne ziman: “Rojên xweş ên jiyana min zaf in, dem bi demên jiyanê em xweş derbz dikin, wan demên ku ez li ber karên hizbî mandî me, û hest dikim ku min karek kiriye, û wan demên ku zarokên min dikenin, eva demên xweş ên pêşmergatiya min in”.



‘Omer Xulam’elî

Ew herwisa rojên herî nexweş ên pêşmergatiya xwe jî bi vî awayî tîne ziman: “Talî û nexweşiyên sî û çend salên pêşmergatiya min, bi nivîsînê cih nabin. Gellek ji hevalên min yên xweştivî çi di pileyên bilind yên hizbî, û çi jî wan demên ku em bi hev re di pelekê de bûn, şehîd bûn, û birînên gellek ji wan ber çavên min in, û gellek êş û azarên wan di dilê min de ne, lê “bûyera herî tal ya temenê min jidestdayîna heval û mamostayê min şehîd Muhendis Xeyatî ye, jiber ku ew bûyera bi sedema kêmtirxemiyê ve rû da, û dikarî ku rû nede”.

‘Omer Xulam’elî derheq jiyana xwe ya hevpar de dibêje: “Di destpêka salên şêstî de, yekem car di herêma Serşaxan ya Nexedeyê, û piştre jî di nexweşxaneya 25’ê Gelawêjê de, min Hawrê Îsma’îlî hevjîna xwe ya niha nas kir, piştre wisa çê bû ku em di payîza sala 1986 (1365)’an de bi hevre jiyana hevpar pêk bînin, û berhema vê jiyana me jî keçek û sê kur in.

‘Omer Xulam’elî bi vê peyamê dawî bi hevpeyvîna xwe tîne: “Ez xwe di vê astê de nabînim ku peyam ji xelkê Kurdistanê re min hebe, belkû min peyama xelkê Kurdistanê bihîstiye ku bi piştevaniya xwe, daxwaza berdewamî di xebat û tekoşînê de ji xortên xwe yên pêşmerge kirine”.

# Bijardekujî di bin siya rejîma Îranê de



**Şehab Xalidî**




Di nav wan guherînkariyên bi lez ku di cîhanê de rû didin, eva kesên bijarde (Noxbe) ne, ku dikarin bibin sedema pêşkevtina welat di warên siyasî, aborî, rewşenbîrî û ..hwd de.

Lê bi sedema vê ku ew kesên bijarde, xwediyê bîr û ramenekî serbixwe, û di heman demê de kûr û zanistî ne, deshilatdarên dijî zanistê, ku bi hêsanî û bi anîna belgeyan nikarin dijayetiya ramanên wan bikin, lewra biryarê didin ku bi terora kesayetiya wan kesên bijarde û serbixwe, yan jî bi dûrxistina wan bo ciyên din, wan neçar bi helatina ji welat bikin.

Herçend ku bijardekujî (noxbekujî) ji sedsalî berî niha ve, di serdemên Qacariyan û şahên pehlewî de jî hebûye, lê piştî bidestvegirtina deshilatê ji aliyê kesekî wek Xomêynî ve, ku heya berî şoreşa gelên Îranê jî, ji bo azadiya girtiyên siyasî yên serdema şah du'a dikir, û bas ji xizmetkirina bi xelkê welat di hemû warekî de dikir, û digot ku nabe ruhanî di welat de deshilatê bi dest ve bigrin, bixwe bû nûnerê xwedê li ser erdê, û bû cihgirê îmamê zeman, û welat da destê ruhaniyên wisa, ku ji hizr û îdeolojiya wilayeta feqîh zêdetir, tu bîr û ramanek din, ne bi dirust dizanîn û ne jî qebûl dikirin.



Belê wan ruhaniyên xwedî deshilat, bi biryara Xomêynî bi hezaran bijardeyên welat ku li dijî dîktatoriyê bûn, û ji bo azadî û demokrasiyê, û ji bo serbixweyiya biryardana her takeke civakê şoreş kiribûn, li jêr navê "Şoreşa Çandî" de, di zanîngehan de derkirin, ku gellek ji wan neçar man ku welatê xwe bi cih bihêlin, yan jî gellek ji wan hatin girtin.

Êdî ji wê demê şûnda dijberiya bi kesayetiyên bijarde re, yên ku dixwastin di warên zanistî, aborî, û siyasî de, xizmeta welatê xwe bikin, lê tenê îdeolojiyan wilayeta feqîh qebûl nedikirin, bû siyaseteke neguher bo ragirtina vê nizama serberedayî, û heya niha jî ew siyaset didome.

Lewra bi sedema vê siyaseta nedirust ya karbidestên rejîma Îranê, helatina mejiyan ji Îranê ber bi derve ew qas eşkere ye ku kesekî wekî Hesen Husênî cihgirê binyata neteweyî ya bijardeyan radigehîne ku 308 wergirên midalên olempiyadê û 350 kes ji serkevtiyên di taqîkirinên seraserî, ji sala 2002-2007 (1382-1386)'an reviyane derveyî welat.

Herwisa sendûqa navneteweyî ya dirav jî sala 1999'an di raporekê de ragehand ku di nav welatên di halê geşekirinê de, Îran di pileya yekemîn ya rîzbenda helatina mêjiyan de ye.

Herwisa radigehîne ku her sal 150 hezar xwendekar rû li derve dikin, ku di encam de 50 milyard dolarî zirarê digehîne welat.

Ew yek bi başî nîşan dide ku bijardeyên welatê me bi sedema nebûna azadî, dadperwerî û bêkariyê, ku hemû jî encama siyasetên şaş yên karbidestên rejîma Îranê ne, welat bi cih dihêlin.

Di demekê de ku ew kesên bijarde di welatên derekî de xwediyê rêz û hurmeta deshilatdaran in, û di rêûresmên curbicur de rêz ji xizmetên wan tê girtin, û têne xelatkirin, û ew yek jî dibe sedema handana zêdetir ya wan ku xizmeta welatê wan bikin.

Lê rejîma Komara Îslamiya Îranê bi berçav wisa nîşan dide ku Îrana li jêr deshilata wan de, têde dadperwerî, mafên mirovan û azadî û demokrasiyeke rasteqîne heye, û eva yên welatê xwe bi cî hêlane, fitneçî û ajawegêr û ajanên dewletên bîhanî ne.

Di vê derheqê de Ehmedînijad di dema serkomariya xwe de serbarê hebûna serjimêriyên curbicur radigehand ku me di Îranê de diyardeyek bi navê helatina mêjiyan nîne, û Kamiran Danişçû Wezîrê Zanistê jî wê demê digot ku tiştek wisa tuneye, û eva ragehandinên giştî yên Rojava ne ku li dijî me piropagendeyan dikin.

Em hêvî dikin ku kesayetiyên bijarde û şareza rojekê vegerin welat, û di bin siya deshilatdariya hikûmeteke demokratîk de welatê xwe ber bi kopikên zanist û pêşkevtinê ve bibin pêş, jiber ku xelkê welatê me hêjayî jiyaneke xweş û serdemiyane ne.

# Gotinên Navdaran



A: Firat Ceweri

Bextiyarî ji ew çend pir perçeyan pêk tê, ku hertim çend perçe jê kêm in.

**Bossnek**

Bextiyarî zexmiyê diafirîne.

**C. W Curtis**

Herkes hesinkerê bextiyariya xwe ye.

**Gotineke Almanan**

Muzîk zimanê mirov yê gerdûnî ye.

**Langfellow**

Muzîk buhuşta di bin me de ye.

**Addison**

Yê ku ji çaran sisiyê temenê xwe dabe xwendinê, wê helbet bi namûs be.

**Diderot**

Em çiqasî hindikî bizanibin, em ew çend bi şik in.

**H.W.Shaw**

Tiştê ku em hindikî pê dizanin, em qet jê ne bi şik in.

**Goethe**

Baweriya xwe bi tiştekî neyne, li hemberî her tiştî bi tevdîr be.

**Gotineke Latînî**

# Kurtefîlma "Mal û Kilîd" ya Şivan Etûf li Îtaliyayê jî xelat stand!



**Hewlêr (Rûdaw) - Hunermend û lîstikvanê navdar ê sînemayê yê Başûra Kurdistanê Şivan Etûf, xelata taybet a Jûrî ya Festîvala Navdewletî ya "Fiatî Cortî" ya Îtaliyayê bidest anî.**

Lîstikvanê sînemayê Şivan Etûf vê carê ne ji ber lîstikvaniyê lê ji ber derhêneriyê xelat stand.

Kurtefîlma Şivan Etûf a bi navê "Mal û Kilîd" di Festîvala Navdewletî ya Fiatî Cortî ya Îtaliyayê de ku li bajarê Venîzê yê wî welatî hat lidarxistin, hêjayî xelata taybet a Jûrî hat dîtin.

Şeva 7'ê vê mehê, dema Şivan Etûf çû ser dikê ji bo wergirtina xelata xwe, wêneyên li ser tîşirta xwe nîşanî beşdaran da û got: yek ji van Gerîla û yê din jî Pêşmerge ye ku li Kobanî ji bo azadiya hemû cîhanê şer dikin.

Etûf di berdewamiya gotinên xwe de wiha axivî: "Dê rojek were ku ev mala kurd a bê kilît serbixwe be, hûn dê bi ala serbixwe ya Kurdistanê derbasî nav bibin."

# Diyar Dersîm di şerê Kobanê de beşdarî kir



Dihok (Rûdaw) -Hat zanîn ku hunermendê Kurd Diyar Dêrsim çend rojan çûye Kobanê û li kêleka şervanên YPG'ê şerê DAIŞ'ê kiriye.

Jêderekî nêzîkî hunermend Diyar Dêrsim ji Rûdawê re ragihan ku çend roj berî niha, Diyar Dêrsim li mala wî bûye û behsa vê yekê kiriye ku çawa çûye Kobanî.

Wî jêderî li ser zarê Diyar Dêrsim wiha got: "Ez wek hunermendekî çûbûm Kobanê, lê min çend rojan jî çeka ji curê BKC Hilda, û li dijî DAIŞ'ê şer kir."

Diyar Dêrsim niha li Almanyayê ye û mijûlî tomarkirina sirûdekê ye li ser Şingalê. Di wê sirûdê de jibilî Diyar, Şehrîbana Kurdî û Eyûb Elî jî beşdar in.

# Ferhenga Jaba ya Kurdî-Fransî derket

Hewlêr (Rûdaw) - Ferhenga M. August Jaba a kurdî-fransî ya bi navê "Dictionnaire Kurde-Français" ku di sala 1879'an de, li St-Petersburg derketibû, ji aliyê Weşanên Avesta ve hat çapkirin.

Ferhenga ku di rêza Re-Edîsyon de çap bûye, bi pêşgotina Salih Akin dest pê dike. Akin balê dikşîne ser van xalan:

"Ferhenga kurdî - fransî ya Auguste Jaba di pêşveçûna ferhengnivîsiya zimanê kurdî de jî xwedî cihekî taybet e. Mirov dikare ferhengê bi hêsanî wek pêngaveke girîng di ferhengnivîsiya kurmancî de bipejirîne. Ew Ferheng ji 496 rûplan pêk hatiye.



# Zimanê Kurdî



## Beşa 6. Dema lîstikê

### Navên koman bi wêneyên jêrîn re hevyek bikin.



Koma pirtûkxaneyê



Koma muzîkê



Koma werzişê



Koma jîngehparêziyê



Koma folklorê



Koma şanoyê

# Tiştonek



**A: Mahir Berwarî**

1- Cêwîn e li kêlek in, ne goşt in, lê nermik in, ev çiye dê fêm bikin ?
- Sênîka val, tejî hingivînê tal.
-Sêniya wale, pir le hengowînî tal e.
- Tiştekî min heye tiştonek.dunya hemû têdeye.

2- Du Golê reş û hişîn, li ser bejna şan û şîn.
- Du pencerên bê derî, bi şev girtî, bi roj vekirî.
- Sipiye wek şîrî, reşe wek qîrî, tîje wek şirî
- Çendî bideyê têr nabit. (* çav, meqes, nefs)
- Odek şûştî muştî, cotek qazî têde runiştî.
- Kaniya qinê qinê, mîr û hekîm jî dest didinê.
(* Bo difnê jî têt.)
- Wî lay pêjan, vî lay pêjan, di nav da morî û mercan.
- Hînî û mînî, ya li bin kûnî, ez yê dibînim, tu nabînî.
- Hêlîna şimfarê, ya li nîveka du guliyêt darê, ne li berojî, ne li nizarê.
- Wek stêrikan diçûske, deriyê wê wek birûsk e, li ser dileqe birû û bisk e, kî ker nebe wê nasdike!!
- Ne kend e ne lend e, bi kendê ve bend e, bizane çiye û çend e?

3- Ne dest e lê wek hev e, ne şe ye wek melêv e, pehin dibe bi erdê ve, mirov dipîve gav e.

Têdîtin: Amadekar destkariya devoka metelokan nekiriye

**Xwendevanên hêja!**

**Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi riya E-Maila Agiri2003@gmal.com ji me re bişînin**

# Agirî

- Rojnameya “Agirî” di van malperên jêrên de bixwînin:
- www.Kurdistanmedia.com
- www.Agirimedia.org
- rojnamaagiri@gmail.com
- www.facebook.com/Agirikirmanji

Navnîşana derveyî welat: AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE E - Mail: Agiri2003@gmail.com Hejmar (242)




## Qazancên rûnê bademê bo leşê mirov

1-Hekî rûnê bademê li çermê ser bihê dan, dibe sedema vê ku geriyana xwînê di wê cihê de çalak bike, û dibe sedema dirêjbûna tûka ser, û çareseriya xurîna çermê ser û verîna tûkaser dike.

2-Herwisa bo serûçavên mirov pirr baş e, û serûçavên mirov nerm radigire û ji qermiçînê rizgar dike, û lêvên mirov jî ji şeqşeqbûnê diparêze.

3-Xwarina rûnê bademê dibe sedema parastina tendirustiya dil, û çareseriya hişikbûna zik dike. Kesên serveyî 18 saliyê dikarin rojane 30 mîlîlîtir ji rûnê bademê bixon.

4-Herwisa hekî ew rûn li birjankan bidin, dibe sedema parastina birjankên mirov ji zirara pêkhateyên kîmyayî.

Çavkanî: Xendan

## Bexdadî deng dabû Malikî



**Li gorî wan belgeyên ku ketine destê Dezgeha Îstixbarata Îraqê, Ebûbekrê Bexdadî di hilbijartina 30.04.2014’an de, dengê xwe dabû Malikî.**

li gorî zanyariyan, di yek ji wan belgenameyan de qala vê yekê hatiye kirin, ku Bexdadî daxwaz ji alîgirên xwe kiribû, da ku li derdora Bexdayê dengê xwe bidin lîsteya Malikî. Wî bixwe jî di parêzgeha Selahedîn de, bi nasnameyeke din, deng dabû Malikî û lîsteya wî. Armanca wan jî ew bûye ku hekî Malikî deng bîne, eva hêcet bo wan xweş dibe ku baştir agirê şerê Şî’e û Suniyan geş bikin.

**Çavkanî: Xendan**

## Pasportên herî xwedîhitbar ên cîhanê




**Yekemîn: Ya welatên Berîtanya, Swîd û Fenlandê ye, ku xwediyên vê dikarin serdana 173 welatên cîhanê bikin.**

Duyemîn: Ya welatên Amerîka, Alman, Danmark û Lokzamborgê ye, ku xwediyên vê dikarin serdana 172 welatên cîhanê bikin.

Sêyemîn: Ya welatên Îtalya,Biljîk,û Holendê ye, ku xwediyên vê dikarin serdana 171 welatên cîhanê bikin.

Çaremîn: Ya welatên Îrlend, Kanada û Feranse, Japon, Norwêj, Portixal, û Îspanyayê ye, ku xwediyên vê dikarin serdana 170 welatên cîhanê bikin.

Pêncemîn: Ya welatên Siwîs,Nemsa, û Niyozîlendê ye, ku xwediyên vê dikarin serdana 168 welatên cîhanê bikin.

Şeşemîn: Ya welatên Ustiraliya,Sengapûr û Yonanê ye, ku xwediyên vê dikarin serdana 167 welatên cîhanê bikin.

Heftemîn: Ya Kureya Başûr e, ku xwediyên vê dikarin serdana 166 welatên cîhanê bikin.

Heştemîn: Ya Îslendê ye, ku xwediyên vê dikarin serdana 165 welatên cîhanê bikin.

Nehemîn: Ya welatên Malizî û Maltê ye, ku xwediyên vê dikarin serdana 163 welatên cîhanê bikin.

Dehemîn: Ya welatê Lîxin Iştaynê ye, ku xwediyên vê dikarin serdana 159 welatên cîhanê bikin.